**-tir** (II) : Paşgira forma kemper ya rengdêrî yan jî hokerî ya ji bo saloxdana rewşeke danberhevî û miqayesekirinê ye.

Nimûne: xweş**tir**, çê**tir**, germ**tir**, biha**tir**, bilind**tir**, xurt**tir**, mezin**tir**, pir**tir**, dûr**tir**, zû**tir**, derengtir, lez**tir**, beza**tir.**

**-tiraş** : Paşgira ji lêkera "tiraşîn / tiraştin"ê ye û maneya kesê / tiştê ku bi karê tiraştinê radibe dide peyvê.

Nimûne: kevir**tiraş** (bertiraş), heykel**tiraş**, qelem**tiraş**, dar**tiraş**, ser**tiraş**, sim**tiraş.**

**-tirîn** : Paşgira forma lapekemper ya rengdêrî yan jî hokerî ya ji bo saloxdana rewşeke danberhevî û miqayesekirinê ye.

Nimûne: xweş**tirîn**, çê**tirîn**, germ**tirîn**, biha**tirîn**, bilind**tirîn**, xurt**tirîn**, mezin**tirîn**, pir**tirîn**, dûr**tirîn**, zû**tirîn**, dereng**tirîn**, lez**tirîn**, beza**tirîn**

**-tî** : Paşgirek e ku ji bo çêkirina navdêrên abstrakt tête bi kar anîn.

Nimûne: şivan**tî**, gavan**tî**, hoste**tî**, heval**tî**, bira**tî**, mirov**tî**, zava**tî**, kurdî**tî**, ker**tî**, har**tî**, bereday**îtî**, dur**ûtî**

**-van** / **-evan** (I) : Ev paşgira ku di zimanê farisî de "-ban" e, di kurdî de bûye "-van" yan jî "- wan". Di zimanê kurdî de ew bi van çend awayên jêrîn tête bi kar anîn. Wek di van nimûneyan de jî xuya dike, maneya bingehîn ya vê paşgira lêkerî "panêrî / çavnêrîya heywanan kirin, çûna ber heywanan, heywan xwedî kirin" e.
Li vir, hewce ye em bibêjin, ku peyva "şivan"a kurdî di zimanê pehlewî de "şuban" e û peyva "şu" ya ku ji zimanê sanskrîtî ye, di vê peyvê de maneya "pez" wergirtîye. Bi vî rengî, ew di farisî de bûye "çûban", lê di kurdî de dengê "ş"yê hatîye parastin û bûye "şivan". Ev peyv çûye nav zimanê tirkî û bûye "çoban". Herwekî ku xuya dike, mîna ku hinek kes dibêjin, peywendîya vê peyvê bi gotina "ço, çov, şiv" nîn e.

Nimûne: şi**van**, ga**van**. berx**van**, kar**van** /kehrikvan, golik**van**, dîk**van**, masî**van**

**-van** / **-evan** (II) : Paşgira "-van"ê xwedî çend guhartoyên din e.Li vir, herwekî di nimûneyên jêrîn de jî dîyar dibe, ji bo çêkirina navên hin kar û pêşeyan e. Ev paşgir
maneya "ew kesê ku ji karê navbirî fêm û beşedike, ew şuxul ji destê wî têt û xwedan wî karî ye" dide.

Nimûne: nêçîr**van**, bax**van**, lîstik**van**, bêrî**van**, aş**van**, kelek**van**, mele**van**, dîde**van**, nêre**van**, seg**van**, baxçe**van**, rez**van**, melek**van** (serpale), melû**van**, qefle**van**

**-van** (III) : Paşgira "-van"ê ya di vê guhartoyê de bi maneya "kesê ku ji lêdana alaveke mûzîkê fêm dike, jê dizane û bi wî kar û hunerî radibe" dide peyvê. Li vir hewce ye bête gotin, ku di zaravayên din yên kurdî de ji bo saloxdana ev celeb karê hunerî paşgira "- jen"ê tête bi kar anîn, ku ji lêkera "jenîn"ê ye, ango "lê dan". Bo nimûne, dibêjin "keça min kemanê xweş dijene". Gava ku em bala xwe didin zaravayê kurmancî dibînin ku piranîya Kurmancan ji dêl "jenîn"ê ve lêkera "lê dan"ê bi kar tînin. Ji ber hindê, vê nimûneya me gotî, bi awayê "keça min kemanê xweş lê dide / keça min xweş li kemanê dixe" dibêjin. Ji vê jî dîyar dibe, ku kurmancî ji zaravayên din yên kurdî û herweha ji zimanên din yên îranî bi dûr ketîye.

Nimûne: bilûr**van**, zirne**van**, tembûr**van**

**-van** / **-evan** (IV) : Paşgira "-van"ê ya di vê guhartoyê de bi maneya "kesê ku çavê wî li ser karê navbirî ye, kesê li tiştekî miqate ye, panêr" e.

Nimûne: dergeh**van**, pişt**evan**

**-van** (V) : Paşgira "-van"ê ya di vê guhartoyê de ji navdêrekê rengdêrekê diafirîne.

Nimûne: dilo**van**

**-wan** (I) : Paşgira hevmaneya "-van"ê. Ji bo maneya di vê nimûneya jêrîn de li guhartoya jorîn ya (**-van** / **-evan** (I)ê binihêre.

Nimûne: sel**wan** / serwan (ango şivanê deveyan)

**-wan** (II) : Paşgira hevmaneya "-van"ê. Ji bo maneya di vê nimûneya jêrîn de li guhartoya jorîn ya (**-van** / **-evan** (IV)an binihêre.

Nimûne: pa**wan**, sî**wan**

**-wer** (I): Paşgira bi maneya "xwedî kar û pêşeya navbirî" dide peyvê.

Nimûne: pîlewer

**-wer** (II): Paşgira "-wer" ya di vê guhartoyê de bi maneya "xwedîbûn"ê ye.
Nimûne: serwer

**-wer** (III): Ev paşgira ji navdêrekê rengdêrekê çêdike û dide nîşan dan ku "ew tiştê navbirî ji çi materyalî" çêbûye.

Nimûne: zîwer (zîvîn), pîlewer.

**-weş** : Ji lêkera "weşîn" ye û gava ku wek paşgir tête bi kar anînê maneya "tiştê ku karê weşandinê dike dide" peyvê.

Nimûne: pêlweş

**-wî**: Bi alîkarîya vê paşgirê ji navdêrekê rengdêr yan jî navdêreke nû têne afirandin.

Nimûne: ta**wî**, ba**wî**, efsane**wî**, rê**wî**

**-xane** (I): Paşgira bi maneya "xanî, avahî" ye.

Nimûne: nexweş**xane**, ders**xane**, çay**xane**, qehwe**xane**, şîr**xane**, mêvan**xane**, dîwan**xane**, kar**xane**, çap**xane**

**-xane** (II): Paşgira bi maneya "derdana ku tê de tiştek tête kirin" e.

Nimûne: agir**xane**, qûş**xane**

**-xane** (III): Paşgira bi maneya "xaneya çek û sîlehan" e.

Nimûne: şeş**xane**

**-xwar / xwer / -xur** : Paşgira ji lêkera "xwarin"ê ye û maneya "kesê /tiştê ku bi karê xwarinê radibe" dide peyvê.

Nimûne: xwîn**xwar**, goşt**xwar**, pir**xwar**, ked**xwar**, mîrat**xwar**, bertîl**xwar**, mirov**xwar**, heram**xwar**, selef**xwar**, xem**xwar**

**-xwaz**: Paşgira ji lêkera "xwastin"ê ye û maneya "kesê /tiştê ku bi karê xwastinê radibe" dide peyvê.

Nimûne: mirad**xwaz**, azadî**xwaz**, xêr**xwaz**, qencî**xwaz**, da**xwaz**, dil**xwaz**, şer**xwaz**, aştî**xwaz**

**-xenêq**: Paşgira ji lêkera "xeniqandin"ê ye û maneya kesê /tiştê ku bi karê xeniqandinê radibe dide peyvê.

Nimûne: gur**xenêq**, ker**xenêq**

**-xur** : bnr > xwar

**-xwer** : bnr > xwar

**-xwez** : bnr > xwaz

**-xwên** : bnr > xwîn

**-xwîn** : Paşgira ji lêkera "xwendin"ê ye û maneya "kesê /tiştê ku bi karê xwendinê radibe" dide peyvê.

Nimûne: quran**xwîn**

**-yar /-iyar** (I) : Ev paşgir bi maneya "dost, heval" e.

Nimûne: bext**iyar**, hiş**yar**, zan**yar**, jî**yar**, nas**yar**, berpirs**iyar**, pe**yar**,

**-yar /-iyar** (II) : Ev paşgir maneya "kesê ku wî karî dike" dide peyvê.

Nimûne: cot**yar**, kir**yar**, kirr**yar**, şandî**yar**

**-za** (I) : Paşgira ji lêkera "zan / zayîn"ê ye û maneya "ji dayîka bûye, hatîye dinê, zaye" dide peyvê.

Nimûne: nû**za** (=ber**za**), heval**za** (cêwî)

**-za / -zî / -ze** (II) : Bi maneya **"**ji kesê navbirî çêûye, ji kesê navbirî dayîka bûye, hatîye dinê, zaye" dide peyvê.

Nimûne: bira**zî** /bira**za**, xwar**zî** /xwar**za**, **mîrza** / **mîrze**

**-zade** : Ev paşgir bi maneya "zarokê ji navbirî çêbûyî, zarokê ..." dide peyvê.

Nimûne: beg**zade**, esil**zade**, mîr**zade**, beg**zade**, şêx**zade**, şeh**zade**, perî**zade**

**-zan** : Paşgira ji lêkera "zanîn"ê ye û maneya "kesê / tiştê ku bi karê zanînê radibe"
dide peyvê.

Nimûne: kurdî**zan**, ziman**zan**, rê**zan**, ho**zan**, qedir**zan**

**-zen / -ezen** : Paşgira ji lêkera "zeden"a farisî ye ku bergindê "jenîn"a kurdî ye. Li gor kurdî diva bû ev pagir biba "jen" lê herwekî xuya ye, me ev form ji farisî bi deyn kiriye.

Nimûne: borî**zen**, şûr**zen**, qelp**ezen**, ney**zen**

**-zar** : Ev paşgir bi maneya cih e, cihê lê çandina tiştekî ye. Bi alîkarîya wê rengdêr yan jî navdêr tên çêkirin.

Nimûne: gul**zar**, ba**zar** (ji biha-zar).

**-zed** : Herwek paşgira "-zen"ê, ku me li jorê jê behs kiriye, ev paşgir jî ji lêkera "zeden"a farisî ye ku bergindê "jenîn"a kurdî ye. Wek paşgir maneya "kesê ku hatiye pêşniyar / pêşkêş kirin" dide peyvê.

Nimûne: nam**zed**

**-zede** : Herwek paşgira "-zen" û "zed"ê, ku me li jorê jê behs kiriye, ev paşgir jî ji lêkera "zeden"a farisî ye ku bergindê "jenîn"a kurdî ye.. Wek paşgir maneya "kesê ku tiştê navbirî lê ketîye" dide peyvê.

Nimûne: felaket**zede**, qeza**zede**

**- firaz / fînaz /finyaz** : Paşgira bi maneya "bilind" e.

Nimûne: ser**firaz**

**-eng** : Ev paşgir ji paşgira "-aheng" ya îranî kurt bûye û di kurdîya îro de bûye "-eng". Ji hokerekê navdêr çêdike.

Nimûne: pêş**eng**

# Peyvên di stranan de

**Amadekar : Emîn NAROZÎ**

| kurdî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| liyan: dilê min liyan e | tedirgin, endişeli; kalbim endişe doludur | inquiet, anxieux; mon cœur est inquiet | anxious; my heart is anxious |
| yabo: bavo | ey baba | (rég. dans les parlers de la plaine de Mêrdîn) père | (reg.) father |
| akincî: dêmanî, dêmatî | yerleşik | sédentaire | sedentary |
| seyir kirin, sêr an se kirin | bakmak | regarder | to watch, to look at, to observe |
| sibeng, sibê, spêde | sabah | matin | morning |
| êmilk: berxê ber şîr | süt kuzusu | agneau de lait | suckling lamb |
| qelibîn: qulibîn | devrilmek | être renversé | upside down; spilt; somersault |
| gulm: qurt | yudum | gorgée | a mouthful (of food or drink especially) |
| bed | kötü | méchant, mauvais | bad, wicked |
| bedgiran | çok ağır | très lourd, implacable | very heavy, implacable |
| kefen | kefen | linceul | a shroud |
| dupa; dupa ez ji bo te hatim | çoğunlukla, çoğunlukla senin için geldim | surtout, principalement ; je suis venu surtout pour toi | mostly; principally, above all I have come for you |
| êlî: ê'lî; bi dengê ê'lî | yüksek; yüksek sesle | élevé, haut ; à haute voix | loud, speaking out loud |
| rîdan: rî, rû, ridên | sakal | barbe | beard |
| mûçing | cımbız | pince à épiler | tweezers |
| çêlî, çêlik: derziya gir | iri iğne | grosse aiguille | a big needle |
| berek | yamaç, yokuş | col | a pass |
| bereka çiyê | dağ yamacı | col de montagne | a mountain pass |
| bereka hespê | at yularının boyuna geçirilen bölümü | pièce d'harnachement entourant le cou du cheval | a part of a horse's harness going round its neck |
| çil | doruk | sommet, cime | summit, peak |
| çilê darê | ağaç doruğu | cime d'un arbre | the top of a tree |
| çilê çiyê | dağ zirvesi | sommet de montagne | mountain summit |
| li çil û çiyan | zirvelerde, yükseklerde | sur les hauteurs, sur les sommets | on high land |
| namil: navmil | omuz arası, sırt | le haut du dos, emplacement entre les deux épaules | top of the backe, a place between the shoulder |
| teng û ber: teng û berteng | gümül dürsük | sangle, pièces d'harnachement entourant le ventre et le collier d'un cheval | strap, girth |
| li ber guhê yekî xistîn: pê hisandin | kulağına çalmak | faire sentir, mettre la puce à l'oreille | to make s.o. feel, set s.o. thinking |
| jin berdan | boşanmak (kadından) | répudiation, divorce | repudiation, divorce |
| hozinan; hozê mîhan û berxan ; mîhan hoz kirin | oğlakları koyunlara salmak | lâcher des agneaux sous les brebis | to put lambs to suckle at ewes |
| hebûk | 1) varlık, mal 2) atın bileği, bukağılık | 1) (rég. dans le Caucase) richesse ; 2) paturon, articulation inférieure (au-dessus des sabots) du cheval | 1) (regional in Caucasus) wealth; 2) a horse's pastern (a joint just above the hoof) |
| li ser darê piyan rawestan, li ser lingan rawestan | ayakta kalmak, sürekli çalışmak | rester debout, travailler sans cesse | to remain on one's feet, to work continuously |
| ramûsan: maç | öpücük, öpme | baiser | a kiss |
| ramûsîn | öpmek | embrasser | to kiss |
| hingivê zeyiyan | oğul balı | premier miel de jeunes abeilles | virgin honey, the first honey from a fresh swarm |
| seqlawî (seklawî) | seklavi, slav kökenli asıl at | cheval de race slave | a Slav breed of horse |
| nal | nal | fer à cheval | horseshoe |
| bizmar, mîx | çivi | clou | nail |
| şop | iz | trace, empreinte | a mark, stamp |
| selef, selefê siwaran | süvari alayı | convoi de cavalier | a cavalcade, a convoy of horsemen |
| cuhar, cuher, ceher, cehar | yem torbası | musette, mangeoire | nose bag, feed bag |
| qozax | yosma, şuh | coquette, belle | smart, good looking, pretty |
| ji ... û pêştir | den itibaren | à partir de | as from, starting with |
| dilober, dîlber | güzel kız, dilber | beauté, belle fille | a beauty, beautiful girl |
| evîndar | aşık | amoureux | in love |
| ceng | savaş | guerre | war |
| cangorî | kurban | sacrifice, victime | sacrifice, victim |
| hez kirin | sevmek | aimer | to love |
| guhdar | dinleyici | auditeur | a listener |
| dengbêj | ozan | barde, troubadour | a bard, minstrel |
| narîn | zarif, ince | fin, délicat, raffiné | fine, delicat, refined |
| xirxal | halhal | chaîne de cheville | anklet |
| guhar | küpe | boucle d'oreille | ear ring |
| rewal | tüysüz delikanlı | jeune homme imberbe | a young beardless man |
| qewal | yezidilikte deyiş söyleyen | chanteur d'hymnes religieux yézidis | singer of yezidi hymns |
| xelîn, stûyê te bixele! xanî xelîya | 1) burkulma: boynu burkulası! 2) yıkılmak: ev yıkıldı | 1) se briser, que ton cou se brise ! 2) s'effondre, la maison s'est effondrée | 1) to be broken, may your neck be broken; 2) to have collapsed, the house has collapsed |
| xilxilîn | yıkılmak | s'effondre | to have collapsed |
| peya bûn: daketin | inmek | descendre, mettre pied à terre | to dismount |
| sîng û berê tiştîrî | el değmemiş, bakire | vierge ; dont nul n'a caressé les seins | a virgin, s.o whose breasts have not been caressed |

| | | | |
|---|---|---|---|
| kulxan | 1) hamamları ısıtan, hamamın altında bulunan kupalı ve geniş ocak; (2) çöplük | 1) chaufferie d'un hammam ; 2) décharge publique | 1) the boiler room of a steam bath; 2) a public waste dump |
| tewrî = herî; tewrî pêşî = herî pêşî = | en; en öndeki | le plus ; le plus en avant | the most; the most in advance |
| gernas | kahraman | héros | heroes |
| navgiran | meşhur, ünlü | célèbre, fameux | celebrated, famous |
| boke | cesur, atılgan | courageux, audacieux | brave, daring |
| bokeberan, boxberan | cesur, atılgan gözüpek | hardi, audacieux (comme un bélier) | bold, daring (like a ram) |
| can bi can | can ciğer | intime, très proche | intimate, close |
| xwemalî | 1) aileden veya yakınlardan biri; 2) yerli, kendi yapımı | 1) la famille, proche ; 2) fait maison | 1) the family, close relations; 2) home made |
| lomekar | yakınan, yakınmacı | plaintif | plaintiff |
| dîwan | divan | cour, salle de réception d'un seigneur | a court, a lord's reception room |
| litimîn, likumîn | tökezlemek | trébucher | stumble |
| keleşo | çamaşırı kaynar suda yıkama | lavage du linge dans de l'eau bouillante | washing clothes in boiling water |
| darê keleşoyê | çamaşır tokacı | battoir d'essorage du linge | a clothes wringer |
| miçiqîn: çikîn | (çeşme, göl, kuyu vb), kurumak | tarir | to dry up |
| mirûz, me'd, sikûm, rûçik | beniz, yüz ifadesi | figure, expression du visage | countenance, facial expression |
| pelweşîn | yaprak dökümü | chute de feuilles | falling leaves |
| çêrîn; biçêre | otlamak | paître | to graze (eg. cattle) |
| xwastek; xwestek | istek, dilek | demande, souhait | request, wish, desire |
| bermalî | 1) ev hanımı; 2) eş, zevce | 1) ménagère ; 2) épouse | 1) housekeeper; 2) wife |
| xela | kıtlık | disette | scarcity,famine |
| dawestîn | durmak | s'arrêter | to stop oneself, |
| dawestandin | durdurmak | arrêter, stopper | to stop |
| dagestin | ısırmak | se mordre (les lèvres) | to bite (one's lips) |
| peqîn | patlamak | exploser | to explode |
| peqandin | patlatmak | faire exploser | to make or cause an explosion |
| kaphêşîn: kabhêşîn | ayakları masmavi at | cheval aux pieds bleus | a horse with blue hooves |
| qêrîn: qîrîn: | çığlık atmak, bağırmak | crier, lancer des cris | to shout to cry out |
| zelal | duru, berrak | limpide | limpid, clear |
| kember: kemer | kemer | ceinture | belt |
| şalwar: şelwer | şalvar | pantalon bouffant | baggy trousers |
| qulemişk: qulmişk, kunmişk | fare deliği | trou à rat | rat-hole |
| dizgîn: destgîn | dizgin | rênes | reins |
| rûçik | yüz, surat, çehre | visage | face |
| xelek | halka | anneau | ring |
| xeleka lêvê | üst dudak kenarı | le plis de la lèvre supérieure | the fold of the upper lip |
| şimşat: şahîk, hilîn | kaygan, parlak ve kaygan | brillant et glissant (sol, surface) | shiny or slippery (eg. ground or surface) |
| çengzêrîn | 1) altın kollu; 2) zengin ve cömert | 1) au bras d'or ; 2) riche et généreux | 1) with golden arms; 2) rich and generous |
| bazin | bilezik | bracelet | bracelet, bangle |
| bazing | küçük bilezik | petit bracelet | bangle |
| dewkil: sirsûm, qom | yayık | baratte | a churn |
| hêl: quwet | kuvet | force | force, strength |
| wer: werkî, werkîno, wanî, wisan, welê, weha, wilo, wanîko | öyle, böyle | comme, ainsi | like, thus, |
| gewrî(k) | dağın yüksek yerlerinde geçit veren yer | col de montagne | a mountain pass |
| sitrandin | barındırmak, korumak | abriter, protéger | to shelter, to protect |
| veder | sapa | à l'écart, éloigné de la route | out of the way, isolated, off the beaten track |
| kuzot: bizot, perenoj, sotik | köz | braise | hot coals or charcoal |
| qulp | kulp | anse | handle |
| niqutîn | damlamak | s'égoutter | to drip |
| niqutandin | damlatmak | égoutter | to strain |

# Ferhenga Avestayî-Kurdî

**Behrûz ŞUCAÎ**

| **avestayî** | **kurdî** | **tirkî** | **fransizî** | **îngilîzî** |
|---|---|---|---|---|
| *ϑri-gaye* | sê-gav | üç adım | trois pas | three paces |
| **hurvan-* | rewan | ruh | âme | soul |
| **seveh-* | sibeh, spêde | sabah | matin | morning, east |
| **verev-, vouru* | freh, fereh | geniş | large | wide, broad, spacious |
| **zerey* | zer | sarı | jaune | yellow |
| *baêşezya-* | baş- (ji bo brîn û nexweşiyê) | tedavi etmek | soigner, guérir | to heal, cure |
| *dentan-* | dindan, didan, diran | diş | dent | tooth |
| *dveêşe* | (dij)min, (duj)min | düşman | ennemi | enemy |
| *freêşte* | fre | çok, çoğu | très | most |
| *ham* | havîn (hamîn), hamnan | yaz | été | summer |

| | | | | |
|---|---|---|---|---|
| *hame* | hev, hema | benzer | semblable, similaire | equal, like, the same |
| *hamîne* | havîn, hamnan | yaz mevsimi | saison d'été | summer-time |
| *hau* | ew, hew(qas) | o | il/elle | he/she/that |
| *havene-* | haven, havan | havan | mortier | mortar |
| *hem* | hev | birlikte | ensemble | together |
| *heme* | hemî, heme | her | chaque | any, every |
| *hepte* | heft | yedi | sept | seven |
| *heurve* | her | tüm | tout, totalité | entire, whole |
| *heve, hve, xwe-* | xwe, ho | kendi | soi, le sien | own, one's own |
| *hext* | hêt | bud | cuisse | a thigh |
| *hezeh-, hez* | hêz | güç, kuvet | force, puissance | strength, power, force |
| *heδe* | di- | her zaman, Kürtçe geniş zaman ön eki | toujours, préverbe du duratif | always, (a Kurdish: durative verbal particle) |
| *hişkev-, huşke-, heoş-* | hişk | kuru | sec | dry |
| *hizva-, hizveh-* | ziman, ezman, ziwan | dil | langue | tongue |
| *hunerevent* | hunermend | yetenekli | habile, intelligent | skilled, clever |
| *huşkō-zem* | hişke-zevî | kuru toprak | terre sèche | dry earth |
| *hve* | eve, eva | bu | ceci | this, the, he |
| *hver-, xwen-* | xor- (xorhelat) | güneş | soleil | sun, sunshine |
| *hverə-xşeête-* | xurşîd | parlayan güneş | soleil radieux | the shining sun |
| *jnev* | jûnî, jinû, ejnû | diz | genou | knee |
| *kerəşver* | kişver, kişwer | coğrafi bölge | région de la terre | region of the earth |
| *kere* | kerî | sürü | troupeau d'ovins | herd (of sheep) |
| *ma, me* | me- | ma, olumsuzluk eki | ne pas, négation | not, negation marker |
| *maêt-* | ma- | kalmak | rester | to stay, abide,… |
| *man-, meinye-,* | (ra)man | düşünmek, inanmak | penser, croire | to think, believe |
| *maneh-* | (ra)man, mane | zihin, düşünce | esprit, pensée | mind, spirit, thinking |
| *maneye-* | man- | kalmak | rester | to stay, remain |
| *mater* | ma(k), may, dê(marî), mare | ana | mère | mother |
| *me-* | mi-, min | bana, benim | mon, moi | me |
| *mede, meδe-* | mey | güçlü içki | boisson forte | strong drink |
| *meêş* | mêşin, mîh, ga(mêş) | koyun | mouton | sheep, |
| *meêγe* | mij | sis | brouillard | cloud, mist, fog |
| *meiδyane* | meydan | orta | milieu | the middle |
| *mer-* | mir- | ölmek | mourir | to die |
| *merəte* | mêr, meriv | ölümcül, insan oğlu, insan | mortel, être humain | mortal, human being, man |
| *merəγa* | mêrg | çayır | prairie | meadow |
| *mərəγe* | mirîşk | kuş | oiseau | bird |
| *mesen, mezent-* | mezin | büyük, önemli, heybetli | grand, important, majestueux | great, important, greatness, majesty |
| *mexşî-* | mêş | sinek | mouche | fly |
| *meδeye-* | mest | sarhoş | ivre | drunk |
| *miϑra* | mitra | Mitra, bir tanrı adı | Mithra | Mithra, name of a god |
| *mîjde* | mijde, mizgîn | müjde | récompense pour une bonne nouvelle | reward, for binging good news |
| *mîştî* | hemîşe, mişe | daima | toujours | always |
| *mrûre-* | mirar- | ölesiye | mortellement | deadly |
| *nafe* | navik | göbek | nombril | navel |
| *namen* | nav/name | ad, isim | nom | name |
| *namişte* | nivişt | eğilmek | se courber, s'incliner | bowing down, bent |
| *naveye* | nav | gemi, denizcilik | bâteau, naviguer | boat, ship, navigate |
| *neê-key* | ne-kê (ne tukes) | hiçbiri | aucun | none |
| *nəmah,* | nimêj, nivêj | saygıyla eğilme, dua | révérence, prière | reverence, prayer |
| *nevetá* | nehwêd, not, nod, newe | doksan | quatre-vingt-dix | ninety |
| *nitəma-* | nizim | alçak | bas | low |
| *nû* | nuha, niha | şimdi | maintenant | now |
| *paϑray-* | parêz, parast | korumak | protéger | to protect |
| *peyrîka* | pîrik(hevok), pîrê | cadı | sorcière | sorceress, witch |
| *peytî* | bi-, pey | ile | avec | with, to |
| *peoyryaêynî-* | pêwir, perwîn | Süreyya | Pléiades | Pleiades |
| *pera* | perr-, têperr | geçiş | à travers | aside, across |
| *pera* | pêr, par, | geçmiş, eski | ancien, ex | former (times), |
| *pere* | berê | eskiden | anciennement | formerly |
| *perşta-* | pişt-, parast- | sırt, koruma | support, protection | back, protection, guard |
| *petey-, peyti-, peyϑy-* | peya | sahib, koca | maître, seigneur, mari | master, lord, husband |
| *pezdeye* | bizd- | ürkmek | craindre | to fear, to scare |
| *ramen-* | ramedan (vehesiyan) | huzur, dinlenmek | repos, paix | rest, repose, peace |
| *rane* | ran | bud | cuisse | thigh |
| *raşte-, razişte-, raz-* | rast, raşt (zazakî) | doğru | droit | straight |
| *reêş-* | rîş | zarar | dommage | damage, hurt |
| *reoçeh* | roj | ışık, gün, ışığı | jour, lumière du jour | light, day-light |
| *reoçene-* | rojene, rojin, rojîn | pencere | fenêtre | window |

| | | | | |
|---|---|---|---|---|
| *reoçine* | roj, rohn | parlak, ışıldayan (Kürtçede gün, güneş) | brillant, radieux (en kurde, jour, soleil) | bright, radiant, shining (in Kurdish day, sun) |
| *reod* | rûwek, (ru)stin | yetişmek | pousser, grandir | to grow (in Kurdish growing plant) |
| *reoje* | rovî | tilki | renard | fox |
| *reok-* | ronî, ronak | parlamak, ışıldamak | briller | to shine, to be bright |
| *reoxşne* | roşin, rohn | parlak | brillant | bright |
| *reoxşnev* | roşnayî, rohnî | parlaklık | brillance | brightness, brilliance |
| *reoγne* | rûhn, rûn | tere yağı | beurre | butter |
| *reoδeh-* | (rû)bar | ırmak | rivière | river |
| *reven, reon, urven* | rewan | akışkan, ırmak | fluide, rivière | flowing river |
| *şa-* | şa- | neşeli, mutlu | joyeux, heureux | joyful, glad, happy |
| *sarəd* | sar, sal, ser | yıl | année | a year |
| *şatey* | şadî, şahî | neşe, zevk | joie, plaisir | joy, pleasure, comfort |
| *sefe* | sim | katır tırnağı | sabot (du cheval) | hoof (of the horse) |
| *seyrye* | (ser)gîn, (ser)go | tezek | bouse séchée | dung |
| *seoçeye-* | sûc, sûç | günah, hata | péché, faute | a sinful action |
| *serəte-* | sar, sard | soğuk | froid | cold |
| *skend-, sçendeye-, sçədeye-, sçindeye-* | şkand-, şkên- | kırmak | casser, briser | to break |
| *spaδe* | spah, supa | ordu | armée | host, army |
| *speête* | spî | beyaz | blanc | white |
| *spen-* | seh, seg | köpek | chien | dog |
| *spiş* | spîh, spih | bit | pou | louse |
| *srû, srveêne* | strû | diken | épine | thom |
| *star* | stêr | yıldız | étoile | star |
| *steore* | hêstir | büyükbaş hayvan | gros bétail (chameau, cheval) | largecattle, draught animal (camel, horse, ass) |
| *stewre-* | stûr | kalın, güçlü, sıkı | bien fixé, épais, ferme, fort | firmly fixed, stiff, firm, strong |
| *stûna-, stûne-* | stûn | sütun, direk | colonne, pilier | column, pillar, beam |
| *suxre* | suhr, sor | kırmızı | rouge | red (of fire) |
| *şyev, şev-* | şî, şo, çû- | gitmek | aller | to go |
| *urven, urun-* | rewan | ruh | âme | soul |
| *va-, vaye, vayeh-* | ba-, va- | rüzgar | vent | wind |
| *vaçe* | bêj-, bêje, vace | deyiş | adage | saying |
| *vefre-* | befr, berf, vewr | kar | neige | snow |
| *var-* | (bar)an | yağmur | pluie | rain |
| *vareye-* | barî-, var- | yağmur yağmak | pleuvoir | to rain |
| *veêda-* | peyda | bulma, elde etme | obtention | finding, obtaining |
| *veêm-* | em, me | biz | nous | we |
| *veên-* | vîn-, bîn- | görmek | voir | to see, to look at |
| *vəhrke* | verg, gurg, gur | kurt | loup | wolf |
| *vehyeh* | bêh(tir) | daha iyi | meilleur | better |
| *vî-çiϑe-, vî-çidyai* | cida | ayrı, ayrılma | séparation | separation |
| *vîsent* | vîst, bîst | yirmi | vingt | twenty |
| *vohunî* | xûn, xwîn, gonî | kan | sang | blood |
| *xweê* | xwe | öz, kendi | soi, à soi | self, one's self |
| *xweêd-* | xwî (dan) | terlemek | suer | to sweat |
| *xweiryen* | xwarin (rader) | yemek, içmek | boire, manger | to eat, to drink |
| *xweŋher* | xweyng, xweh | bacı | sœur | sister |
| *xwep-* | xew | uyumak | dormir | to asleep |
| *xwer-* | xwi-, xwar- | yemek, tüketmek | manger, consommer | to eat, to consume |
| *xwerəntî* | xwarin (nav) | yemek | nourriture | food |
| *xwe-wrîre* | xwe-werar | faydalı meyveli | fructueux | fruitful, fruitbearing |
| *yûşma, xşme* | şima (zazakî) | siz | vous | you(pl.) |
| *yvan, yûvan* | ciwan | genc | jeune, jeune homme | young, young man |
| *zan-, zazan-, zîzen* | zê-, za-, zayîn | doğurmak | enfanter, donner naissance à | to give birth to a child, to bring forth |
| *zate-* | zayî- | doğmuş, hazır | né, présent | born, to be present |
| *zaver* | zor | beden gücü | force physique, vigueur | (bodily) strength, vigour |
| *zərəd* | zird, zerî, zil, dil | kalb | cœur | heart |
| *zereneêne, zerəneêne-* | zêrîn | altından | d'or, en or | golden |
| *zerenye-* | zêr | altın | or | gold |
| *zeyene-* | zivistan | kış (mevsimi) | hiver | winter (time) |
| *zeyr.geone* | zergûn | sarı | jaune | yellowcoloured |
| *zî* | jî, zî | gayet tabi, elbette | bien sûr | of course, surely, indeed |
| *zrvan* | zeman | zaman | temps | time |
| *zya-* | ziyan | zarar vermek | endommager | to damage |
| *zyaney* | ziyan | zarar | dommage | damage |

# Pêşgirên kurmancî

Amadekar: Reşo ZÎLAN

*Pêşgir ew pirtik û xurdepeyv in ku têne pêşîya peyvan, bi wan ve têne zeliqandin da ku maneyeke nû bidinê.*

*Kurdî yek ji wan zimanan e ku, ji bilî çend rêyên din, ji vê rêyê sûd werdigire ku peyvan biafirîne. Xurdepeyvên ku wek pêşgir têne bi kar anîn, dikarin bi tena serê xwe maneyekê nedin. Lê hindek ji wan dikarin bi tena serê xwe maneyekê bidin jî. Ew maneya di wê rewşê de, ango maneya wê ya ferhengî û serekî, ji maneya ku ew wek pêşgir dide, yan gelekî dûr e yan jî hîç peywendî di gel nîne. Bo nimûne: Di hevoka "Baran qelemek da Zînê." de peyva "da"yê ji dema borî ya lêkera "dan / dayîn"ê ye. Mirov dizane ku ev "da"ya li vir bi me nîşan dide ku kesekî bi navê Baran tiştek ku qelem e, daye miroveke ku navê wê Zîn e. Lê gava ku ev wek pêşgir, ango "da-", bête bi kar anîn, êdî peywendî di gel wê mefhûma ku lêkera "dan / dayîn"ê daye, namîne. Li vir xurdepeyvek e, bi tena serê xwe hîç maneyeke wê tune ye.*

*Hindek pêşgir hene ku di peyva ku ew tê de ne, maneyekê berpêş dikin. Bo nimûne: Xurdepeyva "hil-" wek pêşgir bi me dide zanîn ku tiştek "ber bi jor" diçe yan jî "ber bi jor" dibe. Rabûn û qilozbûnekê nîşan dide. Wek: "Avêtin" û "hilavêtin". Hilavêtin, avêtineke ber bi jor e.*

*Pêşgirên kurdî du cure ne, yek ji wan sade ye û ya din jî hevedudanî ye.*

## *Pêşgirên sade*

***Pêşgirên sade bi tenê ji peyvekê pêk tên.***

**Ba-**
Wek pêşgir maneya "fitil, fetil" dide, ku li hindek deveran jê re "ba" dibêjin. Bo nimûne: "Ka bayeke din bide vê birxûyê."
Nimûne: **Ba**dan, **ba**dek

**Baz- /banz-**
Bi maneya "qevaz" de ye.
Nimûne: **Baz**dan, **baz**danok, **baz**dok

**Ber-**
Peyva "ber" bi tena serê xwe xwedan gelek maneyan e. Lê, wek di vê nimûneyê de jî dîyar e, li vir, bi tena serê xwe maneyekê nade.
Nimûne: **Ber**dan

**Bê-**
Bi maneya "tune", "bêyî", "bêî"yê ye. Gava ku wek pêşgir tête pêşîya peyvekê, maneya tunebûna tiştê navbirî, tunebûna wî tiştî dide peyva nû.
Nimûne: **Bê**bav, **bê**bext, **bê**dad, **bê**dil, **bê**hiş, **bê**mirês, **bê**mirûz, **bê**pere, **bê**rû, **bê**xwedî, **bê**zar, **bê**zirav

**Bi (I) -**
Bi maneya "yê ku dike", "yê ku wî karî dike" ye. Gava ku wek pêşgir tête pêşîya peyvekê, maneya kesê ku wî karê navbirî dike dide peyva nû.
Nimûne: **Bi**ken, **bi**kirr, **bi**kuj

**Bi (II) -**
Bi maneya "heye, heyî", "di gel" e. Gava ku wek pêşgir tête pêşîya peyvekê, maneya hebûna wî tiştê navbirî yan jî bi wî tiştî dide peyva nû.
Nimûne: **Bi**aqil, **bi**dil, **bi**ruh, **bi**tirs, **bi**ziman

**Çe- = çeng**
Bi maneya "avêtin"ê ye. Xurdepeyva "çe-" kurtbûna ji peyva "çeng" e.
Nimûne: **Çe**bûn, **çe**kirin

**ÇÊ- =çak**
Bi maneya "qenc, baş, rind" e.
Nimûne: **Çê**bûn, **çê**kirin

**Da-**
Bi tena serê xwe hîç maneyekê nade. Lê wek pêşgir carina, di hin peyvên hevedudanî de, maneya "ber bi jêr, ber bi xwarê" dide.
Nimûne: **da**belandin, **da**çikandin, **da**dan, **da**gerandin/**da**gerîn, **da**girtin, **da**ketin, **da**kirin, **da**kişandin, **da**nîn = **da**nan <**da**- nihan> <**da**- înan>, **da**niştin, **da**nizilandin/**da**nizilîn, **da**qurtandin, **da**rivîn/**da**rivandin, **da**werivandin / **da**werivîn, **da**weşandin / **da**weşîn, **da**westandin / **da**westîn, **da**xistin

**Der (I)-**
Bi maneya "derve, der, ber bi derve, ji hundir ber bi derve" ye.
Nimûne: **Der**bûn, **der**çûn, **der**dan, **der**dan, **der**ketin, **der**kirin, **der**xistin

**Der (II)-**
Di hin peyvên hevedudanî yên dem û zeman nîşan didin de, wek "derbihar, deraxlêve", bi maneya "destpêk"ê ye. Di hin peyvên din de maneya carina "tê de, di ... de, li" dide.
Nimûne: **Der**bihar, **der**axlêve, **der**dan(k), **der**pê, **der**ling, **der**male, **der**malî, **der**gûş, **der**xûn

**He- =hi**
Bi tena serê xwe maneyekê nade.
Nimûne: **He**bûn, **he**jmartin

**Hil-**
Wek xurdepeyveke pêşgir di maneya "ber bi jor, ber bi silal" de ye.
Nimûne: **Hil**anîn / **hil**andin, **hil**atin = **hil**hatin, **hil**avêtin, **hil**awistin, **hil**bijartin, **hil**bûn, **hil**çandin, **hil**çinîn, **hil**firîn, **hil**keftin, **hil**kirin, **hil**kişandin / **hil**kişîn, **hil**mijîn, **hil**pekandin / **hil**pekîn, **hil**perikîn, **hil**weşândin / **hil**weşîn, **hil**mij, **hil**bend

**Î- / ev-**
Bi maneya "ev" de ye.
Nimûne: **Î**car = evcar, **î**ro = evro, **î**sal = evsal, **î**şev = evşev

**Ne -**
Ji bo derbirîn û îfadekirina rewşeke neyînî ye.
Nimûne: **Ne**bixêr, **ne**bîna, **ne**dar, **ne**lirê, **ne**mir, **ne**mêr, **ne**xweş, **ne**yar, **ne**zan, **ne**zok, **ne**merd, **ne**lê, **ne**tê, **ne**çê

**Na -**
Ji bo derbirîn û îfadekirina rewşeke neyînî ye. Pêşgira "na-" hevmaneya "ne-"yê ye.
Nimûne: **Na**şirîn, **na**çar

**Nû -**
Çi bi tena serê xwe be, çi jî ne bi tena serê xwe be di maneya "ne kevn, teze, taze" de ye. Gava ku wek pêşgir tête pêşîya peyvekê, maneya nûtîya wî tiştê navbirî dide peyva nû.
Nimûne: **Nû**bar = nûbihar, **nû**za, **nû**jen, **nû**çe

**Ra (I)-**
Wek pêşgir di hin peyvên hevedudanî de maneya "ber bi jor, hilbûneke şaqûlî" û "kişîn û belavbûneke asoyî" dide.
Nimûne: **Ra**berizandin / **ra**berzîn, **ra**bûn, **ra**dan, **ra**gihandin, **ra**girtin, **ra**hêlan = **ra**hiştin, **ra**hiştin, **ra**ketin, **ra**kirin, **ra**kişandin / **ra**kişîn, **ra**pelikîn, **ra**pêçandin / **ra**pêçan, **ra**westandin / **ra**westîn, **ra**xistin, **ra**zandin / **ra**zan

**Ra (II)-**
Wek pêşgir di hin peyvên hevedudanî de maneya "li, li alîyê" dide.
Nimûne: **Ra**jêr, **ra**jor, **ra**ser, **ra**ber

**Ray-**
Wek pêşgir di maneya "berpêşkirin, nîşandan"ê de ye.
Nimûne: **Ray**dan, **ray**kirin

**Ro-**
Wek pêşgir di maneya "rijandin"ê de ye.
Nimûne: **Ro**kirin, **Ro**bûn

**Rû (I)-**
Paşgira "rû-" ya di peyva jêrîn de bi maneya "rû, seth"a jorîn e
Nimûne: **Rû**dan

**Rû (II)-**
Paşgira "rû-" ya di peyva jêrîn de bi maneya "rû, seth"a jêrîn e
Nimûne: **Rû**niştin

**Şe-**
Bi tena serê xwe maneyekê nade.
Nimûne: **şe**kirin = şîyan, karîn

**Tey-**
Bi tena serê xwe maneyekê nade.
Nimûne: **Tey**îsîn

**Ve-**
Bi tena serê xwe maneyekê nade.
Nimûne: **Ve**bijartin, **ve**birrîn, **ve**bûn, **ve**çinîn / **ve**çinandin, **ve**çirandin, **ve**dan, **ve**dizîn, **ve**gerandin, **ve**gerîn = **ve**geran, **ve**gevizandin / **ve**gevizîn, **ve**guhastin, **ve**hêlan, **ve**helîn / **ve**helandin, **ve**hesîn / **ve**hesandin, **ve**hewîn / **ve**hewandin, **ve**hûnandin = **ve**hûnan, **ve**jandin, **ve**jenîn / **ve**jenandin, **ve**jîn, **ve**kirin, **ve**kişandin / **ve**kişîn, **ve**kolan, **ve**kuştin, **ve**lezandin, **ve**lîstin /**ve**leyîstin, **ve**maliştin /**ve**maltin, **ve**malîn, **ve**man, **ve**mirandin, **ve**mirandin = **ve**mirîn, **ve**mirîn, **ve**nandin / **ve**nan, **ve**nasîn, **ve**niştin, **ve**peritîn, **ve**pirtikîn, **ve**renîn, **ve**resandin, **ve**reşandin, **ve**resîn, **ve**reşîn, **ve**ristin, **ve**rotin, **ve**şartin, **ve**xistin, **ve**xurandin, **ve**xwarin, **ve**xwendin, **ve**zelandin, **ve**rûçikandin, **ve**kît, **ve**birr, **ve**der, **ve**ger, **ve**roşk, **ve**şartok

**Vê-**
Bi tena serê xwe maneyekê nade.
Nimûne: **Vê**xistin, **vê**ketin

**We-**
Bi tena serê xwe maneyekê nade.
Nimûne: **We**şandin / **we**şîn

**Wer-**
Bi tena serê xwe maneyekê nade.
Nimûne: **Wer**gerandin / **wer**gerîn, **ve**girtin

## *Pêşgirên hevedudanî yên kurtbûyî*

**Jê-**
Pêşgira "jê-"yê daçekeke hevedudanî ye ku ji "ji vî, ji vê, ji wî, ji wê" kurt bûye. Çi bi tena serê xwe be û çi jî ne bi tena serê xwe be, yan jî gava ku wek pêşgir bi kar bêt, her heman maneyê dide peyva nûafirandî.
Nimûne: **Jê**birin, **jê**birrîn, **jê**çûn, **jê**ketin, **jê**kirin, **jê**xwarin, **jê**zan, **jê**der

**Lê-**
Pêşgira "lê-"yê daçekeke hevedudanî ye ku ji "li vî, li vê, li wî, li wê" kurt bûye. Çi bi tena serê xwe be û çi jî ne bi tena serê xwe be, yan jî gava ku wek pêşgir bi kar bêt, her heman maneyê dide peyva nûafirandî.
Nimûne: **Lê**kirin, **lê**xistin, **lê**ketin, **lê**kolîn, **lê**dan, **lê**hatin, **lê**mişt, **lê**ker

**Pê-**
Pêşgira "pê-"yê daçekeke hevedudanî ye ku ji "bi vî, bi vê, bi wî, bi wê" kurt bûye. Çi bi tena serê xwe be û çi jî ne bi tena serê xwe be, yan jî gava ku wek pêşgir bi kar bêt, her heman maneyê dide peyva nûafirandî.
Nimûne: **Pê**ketin, **pê**girtin, **pê**xistin, **pê**xwarin, **pê**xew, **pê**mahî, **pê**ketî

**Tê-**
Pêşgira "tê-"yê daçekeke hevedudanî ye ku ji "ddi vî, di vê, di wî, i wê" kurt bûye. Çi bi tena serê xwe be û çi jî ne bi tena serê xwe be, yan jî gava ku wek pêşgir bi kar bêt, her heman maneyê dide peyva nûafirandî.
Nimûne: **Tê**dan, **tê**gihîştin, **tê**bînî

KURMANCÎ
MAGAZINE LINGUISTIQUE KURDE
Supplément du Bulletin de liaison et d'information
N° C.P. : 65913 A.S.

© INSTITUT KURDE DE PARIS
106, rue La Fayette, 75010 Paris - France, Tel. : 00 33 (0)1 48 24 64 64
www.fikp.org
*Directeur de la publication :* Reşo ZÎLAN, *Réalisation :* S. ILITCH & M. HASSAN